Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de



agiri

Hejmar: 71
15'ê Îlonê
Buha: 150 Tûmen

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## 15'mîn Salvegera Şehîdên Berlînê Tê Bibîranîn

Roja 17.09.2007'an, 15 sal bi ser terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî li Xwaringeha Mîkonos a Almanyayê derbas dibe. Qirar e bi vê boneyê li Kurdistanê û welatên derve gellek çalakiyên rêzgirtin û bibîranînê werin lidarxistin... .



# REJÎMA ÎRANÊ Lİ BENDA BİRYARNAMEYEK NÛ YA DORPÊÇAN



Li gorî nûçeyan, nûnerên girûpa 5+1 roja 21'ê Îlonê li Waşingtonê, dê li ser pêşnivîsa biryarnameya sêyemîn a ambargoyên navneteweyî yên pêtir li ser rejîma Îranê bicivin.

Şan Mek Kurmek ragihand ku civîna han dê li ser hisarên zêdetir li ser Îranê bin ku qirar e di biryarnameya nû ya Konseya Ewlekarî ya NY de dijî Îranê cih bigrin.

Herweha Wezîrê Karê Derve yê Îngilistanê jî da zanîn ku em li ser biryarnameya sêyemîn li dijî Îranê kar dikin ku qirar e bi zûyî bihê pejirandin.

Ji aliyê din ve jî nûçegihaniya Firansayê da zanîn ku Ehmedînejad di bersiva pirsiyara, xwasta Rejîma Îranê bi nisbet çekên Etomî de, wiha bersiv daye: ''Başe ji ber çi me hewcehî bi Çekên Etomî hebe, ew tu caran ji me re hewce nake û di rastî de em li dijî hebûna vê sîlahê di destê Îranê de ne. Herweha Ehmedînejad dîsan jî daxwaza Konseya Ewlekariyê ji bo sekinandina meyandina Uraniyûmê ret kir û got: Tu sebebek bona wê ku Komara Îslamî xebatên xwe yên dewlemendkirina Uraniyûmê rawestîne, nine. Wî da zanîn ku em xebatên xwe yên di vê derheqê de nasekinînin.

***Bûş:***

## "Divêt Îran Dev Ji Xebatên Xirabkarane Yên Xwe Li Îraqê Berde"

Serok Komarê Amerîkayê roja pêncşem, 13'ê Îlonê di axaftina xwe ya li ser rewşa Îraqê de da zanîn: Niha ku Îraq bûye bi çeperk ji bo demokrasî û diberiya terorîzma cîhanî, lê vê çeperê ji her demekê pêtir hewcehî bi piştevanî û alîkariya civaka cîhanî heye.

Bûş zêde kir ku Îran û Sûriye nexş û rolên xirab û nerênî yên xwe mîna berê di Îraqê de dilîzin û alîkariya malî û leşkerî jî ji bo girûpên tundrew û alîgirên xwe re dişînin.

Herweha got: "Amerîka bi tu awayekê amade nine Îraqê ji bo Îran, Sûriye û El Qaîdeyê bona lîstina rola nerênî yên xwe vala bike, tenê dê hejmarek kin ji hêzên xwe ji Îraqê vekişîne".

Ew gotina Bûş vê yekê ji dide eyanê ku "Îraqek azad û demokratîk dê bersiva pawanxwaziyên xirabkarane yên Îranê bide".



Bûş herweha di axaftina xwe de rû ji xelkê Îraqê kir û got: "We dengê xwe da azadiyê, lewre bizanin ku Amerîka, we bi tenê nahêle".

# Agehdariya Komîsyona Teşkîlata PDK Îranê Derheq Belavbûna Nivîsarekê Di Ajansa Nûçeyan Ya Firatê De Li Ser Partiyê




Roja 02.09.2007'an, Ajansa Firatê a Nûçeyan ji zimanê kesekî bi navê Yûsif Ziyad, nivîsarek bi zimanê Turkî belav kiriye. Di wê nivîsarê de komek buxtan û derewên çêkirî li dijî PDK Îranê derheq PJAK'ê hatiye nivîsandin. Partiya Demokrat bi vê yekê hatiye gunehbarkirin ku goya tevî rejîma Komara Îslamî a Îranê li dijî PJAK'ê alîkariyê dike. Di vê derhqê de komek peyvên nerast hatine rêzkirin ku tejî ne ji mijarên dijî hev û bêbingeh.

Ev belavoke di demekê de tê weşandin ku xelkê tev parçeyên Kurdistanê baş agehdar in ku xebata PDK Îranê bona bidestveanîna armancên gelê Kurd li dijî rejîma Komara Îslamî ye û têkiliyên wê partiyê bi hikûmetên hakim bi ser Kurdistanê re ew qas geş û ronî ne ku hewce ye gellek ji partiyên din vê yekê jê fêr bibin. Ji bilî vê çendê hilweşandina rejîma Komara Îslamî û anîne serkara hikûmeteke demokratîk, di destpêkê de heya îro – berevajî demdemîbûna hinek rêxistin di vê derbarê de – dirûşma bê vir û wir ya Partiya Demokrat bûye. Ji ber van sedeman jî hejmarek zaf ji rêber û xebatkarên vê partiyê ji aliyê Komara Îslamî ve hatine terorkirin û rejîm ji bo têkçûna partiyê ji tu komplo û pîlaneke cinayetkarane xwe ne parastine.

Bi van sedeman û gellek sebebên din ku ji xelkê re ron û eşkere ne, ev piropagandene li dijî PDK Îranê ji bo hemû neteweya Kurd û nemaze gelê Kurd li Kurdistana Îranê cihê ken û heneka ne.

Em di halekê de ku temamiya vê nivîsarê red dikin, em hêvîdar in ku ew kar bi agehdariya PJAK'ê nebibe û berpirsiyariya wê karê şaş li ser stûyê nivîskar be. Lewra em li benda vê yekê ne ku PJAK helwesta xwe li ser vê nivîsarê ji raya giştî re ron û eşkere bike.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**

**Komîsyona Teşkîlat**
**16.06.1386**
**07.09.2007**

## Şandeke Partiya Wefaqa Demokrat Ya Kurd Li Sûriyê, Seredana Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Kir



Roja sêşem, 11.09.2007'an, şandeke partiya Wefaqa Demokrat ya Kurd li Sûriyê, seredana Deftera Siyasî ya PDK Îranê kir. Di vê hevdîtina navbera her du aliyan de, bas li ser rewşa Kurdên Sûriyê û siyasetên dijî Kurd yên rejîma Bees di Sûriyê de hate kirin. Her wiha siyaset û helwestên PDK Îranê derheq vê basê hate regehandin. Di dawiyê de, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê careke din li ser hebûn û berfirehbûna pêwendî û hevkariyên di navbera partiyê de tekez kir.

Di vê hevdîtinê de birêz **Hacî Efrînî**, Sekreterê Partiya Wefaq îşare bi siyaset û helwestên neteweyî yên PDK Îranê her li serdemê Komara Kurdistanê heya niha kir û spasî ji têkilî û helwestên dostane yên her du aliyan kir.

Şanda mêvan ji aliyê birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û çend endamên Deftera Siyasî û Komîteya Navendî ve hatine pêşwazîkirin.

# Mela Ebdula Hesenzade Û Bernameya Wî Ji Bo Partiyê!

Bi dehan caran axavtinên Mela Ebdula piştî cudabûna wî ji Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê li dijî rêberiya wê partiyê di gellek rojname, kovar û malperên înternetê de belav bûye û rojane pir kes dibihîse û dixwîne. Ser û binê wan gotinan jî vedigere bo qenaet pêkirina xelkê bi vê çendê ku ev veqetiyane wî nekiriye, belkî aliyê din ew cudabûn bi ser wan de sepandiye! Heke xelkê Kurdistanê jî gotinên wî napejirînin, eva vedigere ser asta hişyarî û zanayiya xelkê.

Partiya Demokrat jî hez nekiriye dema xwe ji bo bersivandina van gotinan xisar bike, bitelifîne. Lê eva ku navhatî gellek nerihet dike, diêşîne û wekî pirsên din ên xelkê, ji wan re bersiv tune ye, careke din roja 01.09.2007'án, di civînekê li welatê Swêdê têne berbas.

Ew dibêje:

"... Demekê ez dibêjim ku amade me hemû karîn û şiyana xwe çi kêm û çi zêde bixim êxtiyar partî û rêberiya partiyê, bi vê mercê ku partiyê ji bo kar û xebatê bername hebe. Renge ji min bipirsin başe çima heta tu bixwe sekdreterê partiyê bûyî, bernameyê te tune bûn?

Di bersiva vê pirsa îtimalî de ji we re dibêjim, 3 mehên din digihîje nêzîk 3 salank u bernameya min ji bo pêkanîna guhertinan di partiyê de Komîteya Navendî pejirandiye neku m in pêşniyar kiribe. Lê divêt kî bernameyan cî bi cî bike, siyasî Nîzamî! Siyasî Nîzamî bi kî ve bû, bi destê wan vebû( di bin berpirsiyariya aliyê din de bû). Wan nedixwest bibêjin bi hebûna Ebdula Hesenzade ew partî mirî ye".

Ev bersiva Mela Ebdula ji bo vê pirsa gel çunkî wî bi xwe jî qanih nake, bêguman xelk jî bi vê bersiva wî qanih nine, ew jî ji ber vê sedema sade ye ku:

Heke bernameyek ji aliyê Sekreter vê tê pêşniyarkirin û goya Komîteya Navendî jî dipejirîne, Çawa ye ku endamekî Komîteya Navendî ku berpirsiyarê Komîsyoneke partiyê ye, wê bernamê birêve nabe? Heke ev gotine rast e, çima Sekreter û Komîteya Navendî ew kes ceza nekirin û kesekî din li cihê navhatî nedidanîn heta bernameya rêzdar Sekreterê Partiyê rêve biçe, piratîk bibe? Aqibet, ew çi Sekreter û Komîteya Navendiyek e ku kesek bernameyê wan hildiweşîne û rêve nabe?

Malpera *"Kurdistanukurd"*

Berevajî ev gotin ên Mela Ebdula, em dibêjin ku Mela Ebdula di tevahiya dema Sekreterbûna xwe de ew qas di nav hûrekarên partiyê de xendiqîbû ku eger zanîbe bername jî çi ye, çi wextek ji bo wî karî bidest ve nema bû.

Heke ne wisa ye, bila Mela Ebdula niha ew bernameya ku îdea dike wê demê hatiye pejirandin û kesekê/î nedîtiye, biweşîne ku him xelk û him tev endamên wê demê ên rêberiya partiyê wê bernameyê bibînin.

Xa heke bernameyeke baş jî bibe, em dikarin mifahê jê bistînin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekretariya**
**08.09.2007**

# 11'ê Îlonê, Destpêka Guhertinek Bingehîn...

Selîm Zencîrî
rondik24@yahoo.com

6 salan berî niha anku di 11'ê Îlona 2001'an de, êrîşa herî mezin a terorîstî û erdhejek siyasî, Amerîka û hemû cîhan hejand. Bûyerek ku mînaka wê di cîhanê de kêmwêne bûye. Dîrokê li wê rojê de tirajîdya û yek ji bitirstirîn bûyera serdem tomar kir ku tu car nahê jibîrkirin. Wê cinayetê bi awayekê tesîr û karîgeriya xwe li ser xelkê Amerîka û cîhanê danî ku renge heya çend nifşên din jî ji bîr neçe.

Bûyera han di demekê de qewimî ku cîhan taze gewahyarê hiloşîna eniya Sosyalîstî û serkevtina Kapîtalîzmê û herwiha yek cemseriya cîhanê bibû ku Amerîkayê rêveberiya siyasetên wê eniyê dikir û ne bi dilê gellek aliyan bû.

Lewra bizava siyasî û îdeolojîkî ya Îslama Siyasî û Fendemintalîzmê, ku cudabûna (laderbûna) kêmaniyek tundrew û dilreq ji Ola Îslamê bû, bi rêveberiya girûpa terorîstî ya El Qaîdê yekem derba xwe ji nezma nû ya cîhanî weşand û bi dizîna 4 balafirên Boîng û teqandina 3 ji wan bi her du Navendên bazirganî ya cîhanî (118 qatî) li Waşîngtonê û awahiya Pintagonê ku nîşan û sembolên desthilata siyasî, aborî û leşkerî yên Amerîkayê ne, rûpelek nû di siyaseta cîhanî de vekirin û di çend deqîqeyan de, jiyana bi hezaran mirovên sivîl û bêguneh ji tex û qat, netewe û olên cuda cuda yên cîhanê stand û kire pêxora armanca xebata xwe.

Lewra em dikarin 11'ê Îlona 2001'an, destpêka niqte guhertinek kûr û bingehîn di dîroka siyasî a cîhanê de bihesibînin ku têde hevkêşeyên siyasî û pêwendiyên navneteweyî di warên cuda cuda yên siyasî, aborî û ... şekleke nû bi xwe dîtin. Di wê rojê de terorîzm bû bi mesele û diyardeyek cîhanî, herweha cîhan ji yek enîtiyê derxist û bi ser du bereyên **teror** û **dijî teror** ê de parve kir. Eniya terorê pêkhatîbû ji hin girûp û welatên Îslamî yên tundrew, eniya dijî terorê jî Amerîka û hevalbendên wê weke Rûsiya, Welatên Yekîtiya Ewropa, Çîn ûwd...bû.

Wê demê Amerîkayê ragihand ku bêalîtî tu wateyekî nade û her welatek neçar e siyasetên xwe di yek ji wan eniyan de bişopîne û tu rengên din cuda ji rengên reş (eniya terorê) û rengê sipî(eniya dijî teror) nahên xuyandin.

Bi wê hincetê maşîna teblîxatî a Amerîkayê gellek bi rijdî kete kar û çend welatek wekî eniya şer yan "Mihwera Şeraretê"ê binavkirin ku Îran yek ji wan bû. Bi her hal qewimîna wê cinayetê bû bi hêcetek bo destpêkirina şerek mezin û cîhanî li dijî rejîmên totalîtar, dîktator û piştevanên terorîzmê li deverê û bi taybetî di Rojhilata Navîn de. Ji ber ku Rojhilata Navîn make û hêlûna bîr û ramanek kevn û dijî mirovî bi navê teror û terorîzmê di bin sîbera Radîkalîzma Îslamî de ye. Lewra xwezayî ye ku ew devera dê dibe qada şer û rikeberanêya navbera her du eniyan. Em dibînin ku agirê wî şerî heya niha jî diteyîse û hemû dever dagirtiye. Me dît ku yekem dijkiryara piratîkî li hember wê bûyerê ji aliyê Amerîka û hevalbendan ve li Efxanistanê de serî hilda û rejîma Taleban û girûpa El Qaîdeyê bi sebebkarên bingehîn yên vê cinayet û tirajîdyayê dane nasîn û di midehê kêmtir ji mehekê bi ser bihurîna 11'ê Îlonê de, bereya dijî terorê êrîş kirine ser rejîma Talebanê û ew welat li çengê



*em dikarin 11'ê Îlona 2001'an, destpêka niqte guhertinek kûr û bingehîn di dîroka siyasî a cîhanê de bihesibînin*

dîktator û zalimê serdem de rizgar kirin û bi wê çendê jî yek ji hêlûnên terorîzmê hate herifandin.

Piştî rizgarkirina Efxanistanê, tirombêla şer ya Amerîkayê bera xwe da welatê Îraqê ku rejîma hakim bi ser de bi şaristaniyet û mafê mirovan re nenas bû û bi rijandina xwîna xortên xwe dara desthilatdariya tejî ji zulm û zor a xwe av dida. Rejîma Bees a Îraqê bi bîr û eqliyeta reş û tarî a xwe li her kuncek di vê cîhanê de alîkariya malî û leşkerî dida terorîstan, lewre di midehê kêmtir ji 40 rojan de, desthilata biyom a wî herifandin û rêberê dîktator û terorîst ê wî welatî ku sermestê desthilat, şer û serkêşê fitne û xwînrêjiyê bû, îdam kirin. Herçnd ku rewşa niho ya Îraqê bersivder nine û bûye qada şerê gellek welatên dîktator wekî Îran û Sûriyeyê bi Amerîkayê re, lê şerê dijî vê diyardeya pîs û mirar ku wekî ejdehayekê berbûye canê mirovatiyê, berdewam e.

Niha bi xweşî ve çend welatên din li eniya terorê wekî Îran û Sûriyê bûne mijarên sereke di wan hevkêşeyan siyasî de. Rejîma Komara Îslamî ku dayîk û piştevanê rastîn yê wê eqliyeta byom, nerast û bitirs e, tim li ser rêya pêşketin, azadî û şaristaniyeta mirov de bûye berbest. Herwiha pêşîneyek dûr û dirêj di piştevanîkirina terorîzmê, perwerde û elimandina girûpên xwekuj de heye û di heyamê wan 27 salên desthilatdariya xwe de li tu cinayetekê xwe neparastî ye, bi taybetî di kuştin û jinavbirina neyarên siyasî çi li hundir û çi li derveyî welat de destek bilind û rolek mezin hebûye ku em dikarin îşare bi terorkirina rêberên navdar yên gelê Kurd û PDK Îranê, şehîd Dr. Ebdulrehman Qasimlo li Viyenê, herwiha terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî li Mîkonosa Almaniyayê û bi dehan kesên dinê bikin. Seba van cure kiryarên terorîstî rejîm heya niha di çendîn dadgehên navneteweyî wekî dadgeha Almanyayê, Fransa, Arjantîn û Amerîkayê de hatiye mehkûmkirin. Herweha rayedarên payebilind yên wê rejîmê bi sebebkarên eslî yên van cinayetan dayne nasîn û ji seferkirina bo derveyî welat jî hatine bêparkirin.

Bêguman Komara Îslamî li gorî pêşîneya siyasî û dîrokî a xwe weke yek ji hikûmetên herî bêexlaq, paremayî û di heman demê de bi fitne û şerfiroşî yê cîhana şaristanî tê nasîn, lewre bo garantîkirina desthilata terorîstî û terorperwerane ya xwe di cehda destveanîna çekên komkuj de ye. Bêşik heke wan çekan bidest bixe, dê bibe gefek mezin bo ser aştî û tenahiya hemû cîhanê.

Bona wê ku dawî bi wan nearamî, şer û terorane di cîhanê de bihê anîn û mirov di azadî û tenahiyê de bijîn, divêt hizir bi jinavbirina make û çavkaniya teror û tenahiyê li deverê de ku Komara Îslamî ye, bihê kirin. Ji ber ku heta ew rejîme li ser kar bimîne, ne Rojhilata Navîn û ne jî cîhan, aramî û asayişê bi xwe ve dibînin, ji ber ku di nava goşt û demarên terorîstan li her çar aliyên cîhanê de xwîna vê rejîmê diherike. Her çend ku zext û givaşên li ser rejîmê di warên cuda cuda yên navneteweyî de xurttir bûne, lê stratejîstên Komara Îslamî gellek zîrekane livîne û heya niha karîne di vê lîstika bitirs de heya radeyekê serkevin û demê bi qazanc û mifaha xwe heder bidin û xwe ji peşkên agirê vî şerê dijî terorê û tirombêla nizamî ya Amerîka û hevalbendan bi dûr bixin. Lewre bi werandina pelg û lêdana çiqlên darê (Hemas, Hizbula û ...) em nikarin şahidê hişikbûn û jinavçûna teror û terorîzmê di cîhanê de bin. Belkî divêt dara terorîzmê di Rojhilata Navîn de ku koç û bingeha wê Komara Îslamî ye, ji reh û rîşal ve bihê derxistin, daku dawî bi vê desthilata reş li deverê de bihê anîn, ji ber wê ku Komara Îslamî û terorîzma cîhanî, du ser û aliyên yek hêlê ne.

# Koma Kurdan Di Parlemana Turkiyê Li Hember Qonaxeke Nû De

**Azad Kurdî**
**azadkurdi@hotmail.com**

Di du mehên derbasbûyî de bi rêveçûna du hilbijartinên girîng û çarenivîssaz li Turkiyê, ev welat yê berbirûyê qonaxeke nû ji jiyana siyasî bûye û raya giştî a cîhanê jî baleke taybetî kişandiye ser rojeva siyasî ya Turkiyê. Me dît ku piştî çend mehan nîqaş li ser hilbijartina kesekî Îslamîst ji bo Serok Komariya Turkiyê, di encam de Parlemana wî welatî roja sêşem, 28'ê Tebaxa 2007'an, Ebdula Gul, berendamê AKP'ê û Wezîrê Turkiyê yê Karê Derve, di tura sêyem a hilbijartinê de 339 deng wergirt û bû 11'hemîn Serok Komarê Turkiyê. Di dîroka 80 saliya borî a Turkiyê de, eva yekemîn Serok Komarê Turkiyê ye ku derbasbûyiya xebata Siyasî-Îslamî heye. Hilbijartina wî bûye sedema nigeraniya tund a Arteşî û alîgirên sîstema Layîkbûnê li Turkiyê.

Partiya Civaka Demokratîk (DTP) ku partiyeke Kurdî a qanûnî li Turkiyê ye, di hilbijartinên 22'ê Tîrmeha 2007'an, ên Parlemana Turkiyê, berendamên xwe wekî serbixwe di hilbijartinê de beşdar kir û karî 23 nûnerên Kurd bişîne Parlamentoyê û bo cara yekemîn di dîroka Turkiyê de, li Parlemanê Koma Kurd ava bike. Koma nûnerên Kurd ên DTP'ê di Parlimana Turkiyê de, girûp û koma çarem a nava Parlemanê tê hesibandin. Nêzîk 120 nûnerên Parlemana Turkiyê li ber Kurdan diketin, mixabin tenê 23 nûnerên Kurd karîn biçin Parlemantoya vî welatî! Eva di halekê de ye ku tenê AKP'ê 90 nûner ji Kurdistanê daxistin Parlemanê.

Partiya Civaka Demokratîk ji bo bidestxistina mafên neteweyî ên gelê Kurd li Turkiyê û çareseriya pirsgirêka Kurd ji rêya aştiyane û demokratîk dixebite.

Yekemîn berbirûbûna Koma Kurd a Parlemana Turkiyê bi hikûmeta nû a AKP'ê re li pey avabûna komê, helwêst li hember pirsgirêk û nîqaşa çend mehî a hilbijartina Serok Komarê yazdehem ê Turkiyê bû. Piştî ku berendambûna Ebdula Gul bo Serok Komariyê hate eşkerekirin, wî bi gellek partî û rêxistinên siyasî, civakî û sivîl re hevdîtin pêk anî. Yek ji wan partiyên ku Gul serdana wê kir, Partiya Civaka Demokratîk bû, wî di wê serdanê de bas li ser pêwîstiya peymana biratiyê kir û got ku li Turkiyê gellek pirsgirêk hene, ev pirsgirêk jî divê bi hesta biratî, yekîtî û ji rêya demokrasiyê ve werin çareserkirin. Di hevdîtinê de, Serokê Koma DTP'ê li Parlemanê, Ehmed Turk û nûnerên din ên Koma Kurd bi eşkere daxwaz ji Ebdula Gul kiribûn ku heke ew îtîrafê bi pirsa Kurd bikin û hewlê bidin vê dozê ji rêya demokratîk û aştiyane di çarçoveya Turkiyê de bihê çareserkirin, ew dê wekî Koma DTP'ê, piştgiriyê ji navhatî bikin û di hilbijartinê de deng didin wî. Ji ber ku ji bo çareseriya pirsgirêkên li Turkiyê yên bi rêbazên demokratîk û aştiyane bendewariyên me û gelê Kurd hene.

Lê bersiva neron û ne zelal ya Ebdula Gul, bi daxwazên Koma nûnerên Kurd ên DTP'ê li Parlemanê bû sedema vê yekê ku Koma Kurdan di gerra sêyem a hilbijartina Parlemana Turkiyê.

Mijarek ku li pêşerojê dê rojeva siyasî a Turkiyê zêdetir germ û gurtir bike û bala raya giştî ji bo aliyê xwe rabikişîne, helwest û daxwaziyên vê Komê bi armanca çareserkirina doza Kurd û dijberîkirin li hember bîr û ramanên nejadperest û şovenîstî ên desthilatdarên Turkiyê dibe.

Turkiye ji ber rêvebirina nebaş ya Carnameya Gerdûnî a Mafên Mirovan di nava sînorên xwe de rastî gellek asteng û pirsgirêkan bûye û ji aliyê welatên Yekîtiya Ewropayê û hin welatên din ên cîhanê, bi awayekî berfireh yê ketiye ber rexne û



*Partiya Civaka Demokratîk (DTP) dixwaze pirsgirêka Kurd li Turkiyê ji rêya aştiyane û demokratîk çareser bike*

Serok Komariyê de dengê vala bixin sindoqan û di yekemîn rojên destpêbûna xebatên xwe, bi vî awayî helwêsta xwe li hember redkirin û nepejirandina daxwaziyên Kurdan ên demokratîk xuya bikin.

Ji sala 1923'an ku Komara Turkiyê bi serokatiya Mistefa Kemal Ataturk hatiye avakirin, hebûna Kurd wekî neteweyekê hatiye înkarkirin û tev maf û azadiyên Kurdan tên binpêkirin. Zilm û zordariya neteweyî li dijî Kurdan heya niha jî bi awayekî sîstematîk dimeşe.

Destpêkirina xebatên fermî ên Koma Kurdan li Parlemana Turkiyê, dikare bibe destpêka qonaxeke nû di rêya xebat û têkoşan ji bo çareserkirina pirsa Kurd ji rêya aştiyane û demokratîk û destberdan û paşekêşekirin li siyaseta înkar û çewisandina sîstematîk a neteweya Kurd di heyamê zêdetirî 80 salên borî di hemû warên jiyana siyasî, aborî, civakî, çandî û wd....

Bêguman vê rewşê erk û wezîfeyeke girîng û hessas xistiye ser milê nûnerên Kurd ên Partiya Civaka Demokratîk li lomeyan. mînaka berçav a wê pirsgirêkê, pirsa Kurd li Turkiyê ye ku siyaseta derve a Turkiyê di asta cîhanê bi giştî û nemaze di asta herêmê de tevî kirîzeke kûr berbirû kiriye.

Pêwîstiyên pêkanîna reform û guhertinên kûr û bingehîn di qanûnên Turkiyê de niha zêdetirî her demekê xwe derxistiye holê û ji bo tevlîbûna Turkiyê bi welatên demokratîk re û demokratîzasyona herçiqas bêtir a Turkiyê, divêt dev ji mêjiyê şovenîstî û nejadperest berde û ji bo çareserkirina pirsgirêkên hundirîn û guhertin di siyaseta derve de bi micidî xebatê bike. Nimûneya berbiçav, berçavgirtin û parastina mafên demokratîk ên neteweya Kurd û bi fermî naskirina wan mafan di çarçoveya zagona bingehîn û wî welatî ye ku yek ji pirsên herî sereke ên hundirîn yên Turkiyê ye ku bi salan e welatê Turkiyê pêre dinale û heta niha bê çareserî maye.

Em bizanin di pêşerojê de Koma Kurd a Parlemana Turkiyê dê çi rol û bandorek li ser pêvajoya hessas a siyasî li Turkiyê hebe û doza Kurd dê bigihîjînin kuderê?

# Deqa Axavtina Xatûna Şikofe Qubadî, Nûnera PDK Îranê Di Civîna Salane Ya Enternasyonala Sosyalîst A Jinan De

*Xwendevanên hêja ên Agirî, civîna salane a Enternasyonala Sosyalîst a Jinan roja 7'ê Îlona 2007'an, li bajarê "Stuttgart' a Almaniya bi beşdariya rêxistinên jinan ên ser bi "SOCIALIST INTERNATIONAL WOMAN"ê hate lidarxistin.*

*Ji aliyê PDK Îranê ve, xatûna Şikofe Qubadî, nûnera partiyê di vê rêxistina navneteweyî de beşdar bû. Wê di civîna han de axavtinek girîng pêşkêş kir ku em deqa wê bi kurmancî li jêr dixin ber çavên we.*

**Wergeran bo Kurmancî/Omid**

**Xatûna Serok!**

**Hevalên hêja!**

Bo min ciyê rûmet û şanaziyê ye ku weke yekemîn nûnera Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê, di vê civînê de beşdar im û hêviya civîneke serkevtî û tejî destkevt dixwazim.

**Beşdarên hêja!**

28 sal ji temenê rejîma Komara Îslamî a Îranê derbas bûye. Gelên Îranê 28 sal ji temenê xwe di bin tirs û bêhêvîtî ji pêşerojê di bin sîbera vê rejîmê de bihurandine. Komara Îslamî ji destpêka hatine serkara xwe de, tepeserkirina xelkê, binpêkirina hemû azadiyên siyasî, takekesî û civakî di seranserê welat de, fetisandina her dengeke dij û ji nav birina her bîr û rayeke cuda, weke esleke neguher di sîstema birêvebirina welat de bikar aniye.

Di Kurdistanê de serkut û tepeserkirin ji beşên din ên Îranê zêdetir bû. Ragehandina fermana cîhad li dijî neteweya mafxwaz a Kurd, topbarana bajar û gundan û kuştina xelkê sivîl û bêtawan yê Kurdistanê, serkut û îdam û îşkenceya azadîxwazan di bin navê dijberî tevî bi gotina wan neyarên şoreşê û kirêgirtiyên biyaniyan! ji kiryarên berçav û sereke ên vê rejîmê di Kurdistanê de bûne.

Terora rewşenbîr, şoreşvan û rêberên siyasî li derveyî welat, îdama bikom û kuştina xelkê sivîl yê Kurdistanê, zîndanîkirin û îdama çalakên siyasî û dûrxistina malbatên Pêşmergeyan ji bo herêmên din ên Îranê, zîndanîkirina jinan û ciwanan beşeke din ji siyasetên dijî gelî ên rejîmê li dijî neteweya Kurd bûne. Her niha piştî 5 salan nêzîk 1200 penaberên siyasî ên Kurd li welatê Turkiyê ku di zirûfeke nebaş de dijîn, di bin metirsiya teror û vegerandina bizor a wan bo Îranê de ne. Her wiha zêdetir ji 100 Kurdên penaber ku piraniya wan jin û zarok in, di sînorê navbera Îraq û Urdinê de di bin gefa kuştin û nemanê de ne û hewceyî bi alîkarî û hevkariyan ji bo derbasbûn ji vê rewşa nexwestî hene. Serbarê vana zêdetir ji 8000 Kurdên Îranî ji ber siyastetên gemar ên Komara Îslamî a Îranê koçberî Kurdistana Îraqê bûne.

**Beşdarên rêzdar!**

Berxwedana neteweyên Îranê di sala 1997'an, rejîm neçarî encamdana hinek kiryarên bi nav reformîstî kir. Piştî hatine serkar a Xatemî weke Serok Komar, rejîmê bi xapandina bîr û raya derve, di bin navê reform û guhrînxwaziyê de, hewl da ku rûçikeke însanî ji xwe nîşan bide û cehd kir ku guherîn û reforman gellek ji vê çendê ku hene, mezintir bike. Mixabin karbidestên Komara Îslamî a Îranê heya qasekê karîn di wê siyaseta xwe de serkevin û raya giştî û dewletên Rojavayî bo aliyê xwe rabikişînin.

Niha piştî hatine serkar a Ehemedînejad etmosfera tirs û xofê li Îranê bi giştî û bi taybetî di Kurdistan de ji hemû demekê zêdetir bandor xistiye ser jiyana



Şikofe Qubadî, Nûnera PDK Îranê di Sosyalîst A Jinan de

xelkê. Rûyê rastîn ê rejîmê ku dujminê her dengeke neyar e, ji bo giştî alî û komeleyên navneteweyî eşkere bûye, bi baweriya min niha cîhan ji hewlên Ehmedînejad ji bo vegeriyan bo tund û tûjiyên serdemê hatine serkar a rejîmê, bihêzkirina hesta dijî biyaniyan bi taybet Amerîka û Îsraîlê û xebat ji bo bidestxistina çekên komkuj bi tevahî haydar in. Ehmedînejad bi dehan car bi eşkere bas ji redkirina cinayeta Holokastê û ji nav birina Îsraîlê li ser xarîteya coxrafiyaya cîhanê kiriye.

Niha piştî derbasbûna 28 salan ji temenê rejîmê, xelk ji hemû demekê zêdetir ji naverok û kakila rastîn a vê rejîmê û berheqbûna daxwazên xwe têgihîştiye. Bizava kedkarî, jinan û xwendekarî, parêzerên mafên mirovan û her wiha tevgera rizgarîxwazî a neteweyên mafxwaz ên Îranê û neteweya bindest a Kurd bi taybetî, rejîm ji hemû demekê zêdetir munzewî kiriye û Komara Îslamî roj li pey rojê tepeserkirina xelkê xurttir dike.

Hejmara ew kesên ku di sala 2006'an de hatine darvekirin, du qat zêdetirî sala 2005'an bûye. Di Çiriya Pêşîn a sala 2005'an heya Îlona sala 2006'an, 111 kes hatine îdamkirin û 171 kes jî bi îdamê hatine mehkûmkirin. Ji kesên ku hatine îdamkirin, 5 kes jin û 8 kes di dema îdamkirinê de temenê wan ji 18 saliyê kêmtir bûye û 2 kes li ber çavê xelkê hatine berbaran(recim)kirin. Di nava wan kesên ku bi îdamê hatine mehkûmkirin, 11 kes jin û 14 kes jî ji ber çalakiyên siyasî bi wê hukmê hatine mehkûmkirin û 2 kes jî li benda birêveçûna hukmê berbaranê ne. Li gor rapora Rêxistina Efûya Navneteweyî, Îran yek ji berçavtirîn welatên cîhanê ye ku tê de hêj îdama zarokan tê de berdewam e û her li gor vê çavkaniyê her vê gavê 61 zarok di Îranê de çavnihêriya hukmê îdamê dikin.

Li gor rapora rojnameya "Economist", çapa Londonê, di salên 2005 û 2006'an de, bi sedan Îranî ji ber beşdarî di xwenîşandan û daxwazkirina mafên însanî ên xwe ji aliyê hêzên întizamî ên rejîma Îranê ve hatine destbiserkirin û ji girtîxaneyan re hatine şandin. Ji destpêka sala derbasbûyî ve heya niha girtin û zîndanîkirina çalakên mafê mirovan, çalakên mafê jinan, xwendekaran, endamên sendîkayên karkerî, rojnamevan û dijberên rejîmê bûye sedema tejîbûna zîndanên asayî ên rejîmê û rejîm neçar maye ku dest bi ser hinek malan de bigire û ji wan weke zîndanên demkî mifahê bistîne.

Di rewş û zirûfeke wiha de ye ku YJDK Îranê ku ji bo parêzvanî ji mafê mirovan di Kurdistanê de dixebite, ji Enternasyonala Sosyalîst a Jinan, kom û komeleyên mirovhez ên cîhanê dixwaze ku li hember binpêkirina mafê mirovan di Îranê de bêdeng nemînin û helwesteke jêhatî û çavnihêrîkirî bigirin. Di Îranê de jin û zarok hemû rojê bi awayên cur bi cur dibin goriyên siyasetên dijî însanî ên rejîmê. Werin bila em hemû bi hev re û hevdeng vê rejîmê ji ber binpêkirina mafê mirovan, ne parastina yasayên navneteweyî, siyasetên ferq û cudahîdanîn li dijî kêmaniyên olî, tepeserkirina neteweyên mafxwaz ên Îranê bi taybet neteweya Kurd, tund û tûjî li dijî jinan, dijberî tevî aştî û tenahiyê di Rojhilata Navîn de, rola wêranker di Îraq û Efxanistan û di dawiyê de piştevanî ji terorîzma navneteweyî, mehkûm û şermezar bikin û ji tevgera azadîxwazane a gelên Îranê piştevaniyê bikin.

Di dawiyê de ji we hemûyan daxwazê dikim, di bin navê riha hevkarî û bawerî bi mafê mirovan, bona rizgarkirina penaberên Kurd li Turkiye û sînorê navbera Îraq û Urdinê, azadiya girtiyên siyasî di Îranê de bi taybet birêz **Mihemedsidîq Kebûdvend**, Berpirsê Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê ku ji meha Gulana 2007'an ve hatiye binçavkirin, her wiha betalkirina hukmê îdamê di Îranê de bi giştî û hilweşandina hukmê îdama du rojnamevanên Kurd, **Ednan Hesenpûr** û **Hîwa Botîmar** bi taybetî, ji tu hewl û xebatekê xwe neparêzin.

Dubare ez sipasiya we dikim bona vê çendê ku we ev derfete da min.

# Rê Û Resma Sed Saliya Enternasyonal Sosyalîst A Ciwanan Hate Lidarxistin

*Roja 26.08.2007'an rê û resmek hêja û berfireh bi hinceta rêzgirtin ji sedsaliya avabûna Enternasyonal Sosyalîst A Ciwanan li Berlîna Paytexta Almaniyayê birêve çû. YCDK Îranê jî, weke endamê Rêxistina Ciwanên Enternasiyonala Sosyalîst, (IUSY) beşdarê vê rê û resmê bû. Destpêka rê û resmê bi xwendina beyannameya bîranîna sedsaliya vê saziyê ji aliyê **Luqman Ehmedî**, Berpirsê Şanda Nûneriya YCDK Îranê li derveyî welat û herwiha bi nûneriya 143 saziyên endam ji 100 welatên cîhanê, di Enternasyonal Sosyalîst A Ciwanan de dest pê kir. Emê deqa vê beyannameyê li jêr pêşkêşî we xwendevanên hêja û delal bikin:*

## Beyannameya "IUSY"yê, Bi Hinceta Rêzgirtin Ji Sedsaliya Vê Saziyê

Ez berî her tiştî bi nûneriya bêtirî 143 saziyên endam ji 100 welatên cîhanê, di Enternasyonal Sosyalîst A Ciwanan de bixêrhatina hemû mêvanên xweştevî û xebatkarên rêya azadî û aştiyê dikim û bi hinceta sedsaliya avabûna saziya "IUSY"yê, pîrozbahiyên xwe pêşkêşî hemû ciwanên cîhanê û hemû endamên xebatkar di vê saziyê de dikim.



***Luqman Ehmedî**, Berpirsê Şanda Nûneriya YCDK Îranê li derveyî welat, beyannameya bîranîna sedsaliya ES bi nûneriya 143 saziyên endam ji 100 welatên cîhanê pêşkêş kir*

Sed salan berî niha em bona gihîştin bi wan armancan dixebitîn ku îro rojê em jê re xebatê dikin. **Demokrasî, wekhevî, mafê giştî û aştî**. Îro rojê pitir ji her demeke din em bawerin ku tenê piştevaniya navneteweyî ye ku dikare me bi mafê xwe nêzîk bike.

Em li vir weke dost bi yekdengî bona van daxwazên jêr dora hev kom bûne:

**Aştî:**

Yekîtiya Ciwanên Sosyalîst a Navneteweyî berî wê çendê ku cîhan du şerên cîhanî biceribîne, hatiye damezirandin. Xebat bona bidestveanîna aştiyê, piştî derbazbûna sed salan jî her xwediyê zêdetirîn girîngiyê ye.

Armanc ji aştiyê tenê nebûna şer nine, belku ji afirandina hindek zirûfên girîng bona gihîştin bi armancên me pêk tê: **pêşkevtin**, **wekhevî, dad** û **azadî**. Şer û pevçûn gefek e li ser bingehên dad û edaletê û herwiha dibe sebebê xurtkirin û berfirehkirna bê edaletî û şer û pevçûnê di cîhanê de.

Bidestveanîna aştiyê, di nava bernameyên me yên siyasî de ye û yek ji armancên xebata me ye. Em daxwaza aştî û edaletê dikin, ev daxwaza me jî bo nifşa îro ye!

**Demokrasî:**

Me bi dirêjahiya sed salan, xebata xwe li dijî dîktatorî û zordariyê dom kiriye. Me gellek heval di rêya aştî, azadiya gotin, azadiya kar û xebata rêxistinî û çalakiyên siyasî ji dest daye, lê heya niha jî em di vê xebatê de serneketine.

Piraniya me di bin sîbera rejîmên bi rûyekî demokrat û di bingeh de dîktator, jiyana xwe dom dikin. Niha jî cîhana me tejî ye ji wan rêveberên siyasî ku bi gef û hêza leşkerî desthilatdariyê dikin. Tenê ew kesên azad ku hewcehiyên xwendinê, mafê raderbirînê û mafên wan yên dinê hatibe parastin, dikarin birêveberiya xwe bikin.

Demokrasî hem armanc û hem çawaniya karkirina me ye, rê û armanca me ye, alav û armanc jî tê hesibandin. Di gişt kar û barên siyasî de, pirensîpên beşdarîkirin bi awayekî demokratîk, rûrastî û berpirsiyariyê li ber çav digirin.

Em daxwazê ji hêzên siyasî dikin ku rêya me bigirin pêşberî xwe.

**Dadperweriya Civakî:**

Civakeke dadperwer, civakeke wekhev e. Emegdariya me bo civakeke dadperwer li ser xebata me bona dada aborî xwedî bandor e. Alev û amûrên me yên herdemî di dewleta alîgirê asûdeyiyê de, parêzvanî ji bêkaran û piştevanîkirin ji kesên kal û temenjor, çawaniya xizmetkirinên giştî û hebûna sendîkayên bihêz e ku bûye sebebê parvebûna desthilatê di civakê de. Lê rêyeke pir dirêj pêşberî me ye.

88 milyon ji ciwanan bêkar in. Pitir ji sedan milyon ciwan kar dikin, lê her di xizaniyê de dijîn. Li Afrîqayê pitir ji 300 milyon kes di bin hêla hejariyê de ne. Em careke din piştevaniya xwe ji pêşkevtina rewşa aborî ya welatên Afrîqayî eyan dikin. Em daxwaza dadperweriya civakî ji bo gişt xelkê cîhanê dikin, ne tenê ji bo çîn û qateke taybet.

**Wekhevî**

Me di doma sed sal li xebata xwe ji bo wekheviyê de, gellek destkevt hebûne, lê dîsan jî bona gihîştin bi civakeke wekhev, rêyeke pir dirêj pêşberî me ye. Îro em ji bo xebat li dijî, mêrserdetî û regezperestiyê di gişt cîhanê de peymanê nû dikin. Nabe ol û kultur weke hêcetekê bo paşdekişandina me ji armancên me bona wekheviyê were bikaranîn. Wekhevî ne bi wê wateyê ye ku cudahî nebin. Em dikarin di çand, hilbijartinên takekesî û armancên siyasî de bi ferq bibin, lê divêt ji wan ferq û cudahiyan bo çêkirina pirekê bona rêzgirtin ji hev mifah were standin.

Di vê sedsalê de, me bi hev re cudahî hebûne û di pêşerojê de jî ferqa me dê bi yek qasî be. Lê ferq û cudahî tenê ji rêya hurmetgirtin bi ferq û cudahiyên xelkê din tê parastin.

**Pêşeroja Sosyalîzmê:**

Di doma van çend salan de, em şahidê gellek guhertinên civakî û aborî bûne. Bingeha me di bizava Sosyalîzma Demokratîk de ye. Lê em di bin bandora xebat bona azadiya jinan, aştî û wekheviya neteweyî, çalakiyên xwe didomînin. Her wiha hewce ye basê xurtbûna bizavên xelkê li hember sîstemên bêdad yên navneteweyî bikin.

Di pêşerojê de divê sosyalîzm ew xebatê di her du astên neteweyî û navneteweyî de bidomîne.

Em niha û di pêşerojê de jî dê rêbaza xelkê xwe nû bikin û bona berevanîkirin li hember bêedaletî û ew gefên ku em xistine dorpêça xwe de, dê ber bi pêş bibin. Lê serbarê hemû wana jî em baweriya xwe ji dest nadin ku di cîhaneke çêtir de bidest bixin.

Em serbilind in ku Sosyalîzm û Sosyal Demokrat in. Rûmet û şanaziyê bi destkevtên xwe dikin, lê em bi vê yekê razî ninin. Gellek şer hene ku divêt werin sekinandin, pir netewe hene ku divê serbest bin, divêt sîstemên nû werin afirandin, desthilat û aborî jî divê were parvekirin.

Em emegdariya xwe ji bo wan kesan eyan dikin ku berî me di vê saziyê de xebat kirine û rêya wan dê bidomînin, bona gihîştin bi cîhaneke azad û dadperwer.

**Yekîtiya Ciwanên Sosyalîst ên Navneteweyî**
**26.08.2007**

# Daxuyaniya YCDK Îranê Bi Boneya 11'ê Xermananê Roja Jînoysad Û Qirkirina Xelkê Kurdistanê

*Hevwelatiyên birêz!*
*Xelkê azadîxwaz yê Kurdistanê!*
Ciwanên bi hest û şoreşvan yên çepera xebat û berxwedanê!

11'ê Xermanana sala 1358' a Rojî(02.09.1980)'an, gundê Qarnê, li nêzîk bajarê Nexedê, ji aliyê hêzên ewlekarî û pasdarên Komara Îslamî ve kete ber êrîşa hovane ya Kurdkujên rejîmê û 68 kes ji akinciyên sivîl ên gundê Qarnê hatin qirkirin û piraniya goriyan ku jin, kal û zarok û nemaze zarokên sêvî bûn, hatin şehîdkirin. Cinayeta Qarnê wekî cinayetekê di bin destê desthilatdarên Komara Îslamî hate afirandin û siyaseta vê rejîmê bi armanca serkut û qirkirina tevgera neteweyî a gelê Kurd li Kurdistana Îranê û hewildan û xebatên vê tevgerê ji bo cihgirkirina sêstemeke demokratîk û bidestxistina mafê çarenivîsê ji aliyê Komara Îslamî ve kete ber pêla tepeserkirin û reşekujiyê.

Piştî serkevtina Şoreşa gelên Îranê û talankirina bidestxistiyên şoreşê ji aliyê komek Melayên fersendperest û dijî azadiyê ve, Kurdistan kete rewşeke nebaş û afirîna şereke dasepandî ji aliyê rejîmê ve bi ser Kurdistanê de, pîlan û komploya şerê Nexedê, fermana cîhada Xomeynî bo ser Kurdistanê, Qarnê, Qelatan, şehîdkirina rêberên Kurd Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî, serkut û dasepandina rewşa tirs û xofê bi ser Kurdistanê û hezaran cinayetên din di Kurdistanê de berhema siyaseta dijî gelî û totalîtarîzma Komara Îslamî ye.




Rejîma dîktator a Îslamî ji bilî vê çendê ku berê û niha li hember neteweya Kurd siyaseta tund û tûjane û serkutê bikar aniye, îro jî em dibînin mijûlê kuştin, îdam, girtin û serkutkirina bizava çandî, jin, xwendekar û ciwanan e û her cure dengeke azadîxwazane tepeser dike. Serbarê tundî û dijwariyê, rejîmê bona jinavbirina zêdetir a gelê me û xirab û pîskirina civaka Kurdan, dest yê daye belavkirina madeyên bêhişker di nava ciwan û tex û qatên cur bi cur ên civaka me, lewra ev cure kiryarane li hember civakê weke siyaseta jînosada sipî tê mêzekirin.

Yekîtiya Ciwanan li ser vê baweriyê ye ku rejîma totalîtar a Komara Îslamî cuda ji vê yekê ku tirs û gefek bo ser civaka cîhanê ye, bi bankeya navneteweyî a terorîzmê jî hatiye naskirin û yek ji sebebkarên aloziya herêmê û her wiha yek ji binpêkerên mafên mirov e.

Yekîtiya Ciwanan piştgiriyê ji hemû xebateke çandî – sivîl dike ku ji bo şermezarkirina ew kiryara dijî mirovî a rejîma Komara Îslamî ya Îranê û her wiha ew bizavên ku di pêxema xizmetkirin bi armancên neteweyî ên Kurdan de gavan bavêje û xebat û çalakiyên wan bilind û pîroz binirxîne.

Yekîtiya Ciwanan, 11'ê Xermananê(2'ê Îlonê) roja qirkirin û komkujiya gundên Qarne Û Qelatanê li Kurdistana Îranê ku wekî lekeyeke reş bi nav çavên rejîmê ve xuya ye û belgeyeke înkarnekirî ji bo selimandina binpêkirina mafê mirovan, azadiya jiyanê û nirx û bihayên mirovî ye, wekî Roja Jînosayda Kurd li Kurdistana Îranê dizane û daxwazê ji rêxistin, kom û komeleyên mirovdost û parêzvanên mafê mirovan dike ku wekî belgeyeke qirkirin û jînoysada neteweyekê bihê naskirin. Yekîtiya Ciwanan li ser vê baweriyê ye ku her terze bêdengiyek li hember kiryareke tevkujiyê û binpêkirina mafê mirovan de, mehkûm û şermezar e.

**Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê**
**11'ê Xermanan 1386'an a Rojî**
**2'ê Îlona 2007**

# Bîranîneke Biçûk Ji Şaxevanekî Navdar Yê Cîhanê

Roja şemî, 08.09.2007'an, YCDK Îranê, bi armanca pûte û girîngîdan bi civaka werzişî, yad û bibîranîna **Mihemed Evraz**, li bin navê "**Bîranînek Biçûk Ji Şaxevanekî Navdar yê Cîhanê**" bilind nirxand.

Bîranîna han ji du beşên şaxevanî û semînarê, derheq nasîna Mihemed Evraz û serkevtinên wî yên werzişî di asta Asiya û cîhanê de pêk hatibû.

Di beşa şaxevanî de, girûpeke 20 kesî ku pêkhatibûn ji du beşên şaxevanî yên piştevan û êrîşber, roja 07.09.2007'an, demjimêr 7 sibê çûne ser kopika çiyayê Bawacî li nêzîk bajarê Koyê. Herwiha çendîn dirûşm, wêne û bîranînên Mihemed Evraz, tevî xwe birine ser bilindahiya çiya.

Herweha seet 10:30'ê wê rojê (09.09.2007')an, di hola Fêrgeha Siyasî _ Leşkerî a PDK Îranê, semînarek bi vê boneyê bi beşdariya hejmarek zaf ji Kadro, Pêşmerge, malbat û endamên YJDK Îranê pêk anî. Semînar bi deqîqeyek bêdengî ji bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên Kurdistanê dest pê kir. Di vê rê û resmê de peyama Desteya Birêveberî ya Semînarê ji aliyê Selah Semedî ve hate pêşkêşkirin. Piştre gotarek di bin navê **bîranîneke biçûk ji qehremanekî navneteweyî** ji aliyê Rehîm Ehmedîpûr ve hate pêşkêşkirin. Naveroka vê gotarê bi 5 zimanên Kurdî, Farsî, Erebî, Azerî û Îngilzî hatibû wergerandin û hat xwendinê. Kakila wan gotaran, bas ji wan ferq û cudahîdanên rejîma Komara Îslamî ya Îranê dikir ku derheqî ciwanên welatê me tên meşandinê.



Hêjayê gotinê ye di vê semînarê de, çend dîmen bi CD ji şaxevaniya Mihemed Evraz li çiyayên cîhanê nîşanî beşdaran hate dayîn.

# 2 Kasibkarên Bajarê Pîranşarê Hatin Kuştin Û Birîndarkirin

Li gor agahiyên Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê, şeva 07 – 08.09.2007'an, hejmarek ji kasibkarên bajaraê Pîranşarê li cihekê bi navê Birahîm Şîlan li sînora Hacî Omeranê, dikevine ber êrîşa hêzên rejîmê û di encam de xortek bi navê **Kazim Kelaterî**, xelkê gundê Kone Lacanê, jiyana xwe ji dest da û kesekî din bi navê **Mistefa Derkedar**, xelkê Kone Lacanê bi xurtî birîndar bû.

Hêjayî gotin ye ku hêzên rejîmê li devera Pîranşarê ji xelkê re ragehandiye ku ji roja duşem şûn de, nabe kes hatin û çûna çiyayan bike û her kes li wir were dîtin, dê bikeve ber êrîşa wan.

Her wiha roja sêşem, 04.08.2007'an, hêzên Komara Îslamî li herêmên sersînor yên Pîranşarê, êrîşî ser 4 kasibkaran kirin ku di encamê de, 2 kes ji wan bi navên **Xalid Ebdulahî** û **Mirad Ebdulahî** tên kuştin. Du kesên din jî bi xurtî birîndar dibin û ber bi nexweşxaneyên Kurdistana Îraqê tên şandin.

Kuştin, girtin û dadgehîkirina welatiyên Kurd li Kurdistana Îranê ji aliyê Komara Îslamî bi xurtî û berfirehî berdewam e. Ji bo xwendina nûçeyên vê derbarê serdana malpera me (kurdistanmedia.com) bikin... .

# Gelaleyek Nû Li Dijî Jinan Di Meclîsa Şêwra Îslamî Ya Îranê De

Mehmûd Ehmedînejad û Dezgeha Dadê a Komara Îslamî ya Îranê gelaleyeke nû bona pejirandinê, pêşkêşî Meclîsa Şewra Îslamî a Îranê kirin.

Mehmûd Ehmedînejad, mideheke berî niha jî gelaleyek din bi navê zewacên demekî (Sîxe)ji Meclîsê re şandibû, lê ji ber nerazîbûna ber fireh ya raya giştî nehate pejirandin.

Gelaleya nû ku bo Meclîsê hatiye şandin bi gelaleya piştevanîkirin ji malbatê hatiye binavkirin!

Hatine rojeva vê gelaleyê bûye sedema eyankirina nerazîbûnê ji aliyê çalakên mafên jinan û alîgirên mafê mirovan.

Di çend rojên borî de, nameyeke nerazîbûnê bi îmzaya 2000 kes ji çalakvanên mafê Jinan û alîgirên parastina mafê mirovan di Îranê de pêşkêşî Meclîsê hatiye kirin û daxwaz kirine ku ew gelaleya bi tu terzekê nehê pejirandin.

Di bendeke vê gelaleyê de pirsa zewicîna dubare bê wergirtina îzna hevjîna yekem û bi berhevdana dadwer yê hatiye pêşniyarkirin û daxwaz hatiye kirin ku tevî pejirandina wê di Meclîsê de, bi awayekî fermî di dadgehan dan de birêve here. Di vê bendê de hatiye ku mêr bi 2 mercan dikare bê wergirtina îznê ji hevjîna yekem, jina duyem bîne. Yekemîn merc birêvebirina edaletê di navbera her 2 jinan de ye, merca duyem jî ev e ku divêt mêr xwediyê şiyan û îmkanatên aborî be!

Li gor bendeke vê gelaleyê, dema ku mêr van du mercan li ber çav bigire, dadgeh dikarin bê wergirtina îcazeya hevsera yekem û bi terzeke fermî zewaca duyem a mêr bipejirîne.



Ev gelaleya weke piraniya yasa û zagonên din ên rejîma Komara Îslamî a Îranê bi merema binpêkirina mafê jinan hatiye holê û di warê yasayî, civaknasî û Pîskolojî ve gellek arîşe û pirsgirêkan ji bo takekes, malbat û civakê diafirîne.

Piraniaya mafnas, çalakvanên mafê jinan û parêzvanên mafê mirovan ew gelaleya paremayî û kevnperestane bi gelaleya têkdana bingehên malbatê bi nav dikin û danîna navê piştevanîkirin ji malbatê li ser vê gelaleyê bê mane dizanin, ji ber ku ew bawer in ku piştevanîkirin ji malbatê demekê ye ku yasayên ferq û cudahîdananê ên li dijî jinan bikevine ber lêkolînê û were rakirin, nek pejirandina yasayeke nû li dijî jinan û têkdana jiyana wan.

# Şehîn Talebanî: "Ez Êdî Nikarim Albumên Stranan Berhem Bînim"

Di nava cîhana muzîk û stiranên Kurdî de hunermendên jin pir kêm in. Jinên hunermend û stiranbêj yên Kurd ku di warê muzîk û stiranên Kurdî de kar û çalakî hene, berdewam tevî gellek arîşe û pirsgirêkan berbirû dibin.

Civaka Kurdî nekariye bi awayê pêdivî, delîve û derfetên baş û jêhatî bona çalakî û xebata jinan derheq xizmetkirina bi huner û muzîka kurdî pêk bîne.

Gotinên vê dawiyê yên jina dengxweş a Kurd, **Şehîn Talebanî**, derheq van pirsan, vê rastiyê ji me re eyan dike. Şehîn Talebanî di daxuyaniyekê de bo medyayan ragehand ku albuma "Dûrî", albuma dawî ya wê dibe. Şehîn Talebanî dibêje ku taze albumên din tomar nake.

Şehîn Talebanî di daxuyaniyeke taybet de bo malpera "Peyamner"ê, ragehand: Piştî ku ez nêzîk sê salan mijûlê çêkirina albuma "Dûrî" bûm, tu kompaniyayek amade nebûye ku erkê derkirina wê bigire stûyê xwe.

Ew herwiha dibêje: min biryar da ku piştî vê albumê qet hizra çêkirina albumeke din nekim. Ji ber ku erk û giraniya gişt karan dikeve stûyê min û tu hevkariyekê bona pêkanîna albuma stiranan nabînim.




Jina hunermend a Kurd, Şehîn Talebanî, ragehand: piştî sala 2000'an heya niha min 2 albumên stiranan berham anîne û erkê gişt karan li stûy min bi xwe bûye û heya niha tu dezgeh û kompaniyayek heta bo yek stiran jî hevkariya min nekiriye.

# Navenda Sinfî Ya Masmostayên Kirmaşanê Hate Hilweşandin

Roja çarşem, 05.09.2007'an, Navenda Sinfî ya Mamostayên Kirmaşanê di daxuyaniyekê de nûçeya fermî a hilweşîna xwe îlan kir.

Li gor vê daxuyaniyê, Fermandarê bajarê Kirmaşanê, bi şandina nameyekê ji aliyê berpirsê giştî yê siyasî – ewlekarî yê Wezareta Hundir a Îranê, ku di civîna komîsyona madeya 10'ê ya partî û saziyan de hatiye pejirandin, îcazenameya Navenda Sinfî ya Mamostayên Kirmaşanê hilweşand û daxwaza sekinandina her terze çalakî û xebatekê di bin navê navenda han de kir.

# Civîna Salane Ya Enternasyonala Sosyalîst A Jinan Li Almaniyayê Hate Lidarxsitin






Roja înê, 07.09.2007'an, li bajarê "Stuttgart" a welatê Almaniyayê, demjimêr 9'ê sibêdeyê, civîna salane a Enternasyonala Sosyalîst ya Jinan, dest pê bû. Ji aliyê PDK Îranê ve Xatûna **Şikofe Qubadî**, nûnera partiyê di vê saziyê de beşdar bû. Di destpêka civînê de bas li ser rapora beşa aborî û çalakiyên saziyê di sala 2007'an û her wiha çawaniya birêvbirina kongireya salane a wê saziyê hate kirin ku heya demjimêr 13:00 dom kir.

Piştînîvroya wê rojê nûnerên beşdar di vê civînê de, basek li ser rewşa welatê xwe pêşkêş kirin.

Her wiha di navbera civînê de, xatûna Şikofe Qubadî, karî hevdîtinê tevî nûnerên welatên Ermenistan, Yûnan, Lubnan, Swêd û Qubrisê ku berpirsên beşa Rojhilata Navîn a vê saziyê ne, pêk bîne û bi hûrî û berfirehî li ser binpêkirina mafê mirovan li Îranê bi giştî û bi taybet di Kurdistanê de axivî.

# DEWLET Û DEMOKRASÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Mehek berê, me dîsa behsa demokrasiyê kiribû û em li ser girîngiya wê sekinîbûn. Belê vê carê jî dilê me heye ku em li ser dewlet û demokrasiyê rawestin û van herdu têgehan hinekî ji hevdû veçirînin. Belê beriya wê, divê tu carî demokrasî û tiştên ku bi navê demokrasiyê têne kirin, tevlîhevdû nebin û qet şaş neyên fêmkirin. Lewre gellek liv û tevgerên ku li ser navê demokrasiyê tên kirin ku qet ne demokrasî ye. Ew otokrasî(hêza serdest a ku dewletê diparêze)ye.

Dibe ku hin kes, nêzîkbûna van herdu têgihên dijber (dewlet û demokrasiyê) û linikhevbûna wan wekî tiştekî ecêb bibînin. Belê çawa ku hemû dijber li nik hev û di zik hev de dijîn, dewlet û demokrasî jî bi heman awayî li nik û pevre dijîn û hebûna xwe didomînin.

Dewlet, hêz û çîna serwer a ku serdetsî gel û civakê dibe û wê birêve dibe ye. Dewlet, çendî ku navê demokrasiyê bi kar bîne jî, ew her gav dij û dijberê demokrasiyê ye û li şûna demokrasiyê otokrasiyê bi kar tîne. Dewlet bi qasî ku dûrî demokrasiyê ye, ew qasî jî dûrî gel û civakê ye. Têkiliya navbera gel û civakê têkiliya serdestî û bindestiyê ye. Dewlet, tu carî naxwaze gel û civak azad û serbixwe bibe. Gel û civak jî, ji bo ku bikaribe azadî û serxwebûna xwe bi dest bixe, têdikoşe û doza demokrasiyê dike. Demokrasî, wekî hemû kirû û têgihên sosyolojîk ên din, wateyeke wê ya tenê (ya rastîn) heye. Ew jî serweriya gel û civakê ango serweriya mirov bi xwe ye..

Demokrasî, ne navgîna pêdivî û berjewendiyên mirov û ne jî egera jiyanê ye. Demokrasî, azîneya pêwendî û danûstandinên mirov û sepana rê û rêzikên civakê ye. Mirov ne ji bo demokrasiyê ye; demokrasî ji bo mirov e. Ji bo wê, divê demokrasî di xizmet û suxreya mirov û civakê de be. Demokrasî bizav û şêwaza jiyanê ye.

Di demokrasiyê de venêrana(kontrola) siyasî ji aliyê gel ve pêk tê. Ji bo wê divê ne demokrasî serwerê jiyana civakê be, civak serwerê demokrasiyê be. Gel, ji civaka ku ji takekesan pêk tê ye. Di demokrasiyê de takekes û hemwelatî; ziman, ol, nîjad, zayend, reng, bawerî, siyaset û fikra wan çi dibe bila bibe, wekhev û yeksan têne dîtin û hemû li hemberî rêgezên civakê yên heyî xwedî maf in. Tu kes ji yê/ya din ne binirxtir û ne jî bênirxtir e. Di demokrasiyê de her hemwelatî, li gorî rêgeza yeksaniyê ye. Û hemû mirov, xwediyê mafên venêrana siyasî ne. Mafê her hemwelatiyî heye ku nûnertiya civakê ya siyasî hilde ser xwe û bi berpisiyariya wê tevbigere. Mafê her hemwelatiyî heye ku xwe birêxistin û perwerde bike û beşdarî rêveberiya civakê bibe.

Demokrasî, îro ro wekî çarenameya hemû pirsgirêkên navxweyî û navneteweyî yên civakî tê dîtin. Belê mixabin hemû pirsgirêkên civakî jî li ser navê demokrasiyê pêk tên û didomin. Demokrasî wekî alaveke nûjen di destê her kesî û her hêzê de wekî pêlîstokeke bêpere tê xebitandin û bikaranîn. Dûgelên desthilatdar û mêtinger bi navê demokrasiyê welatan dagir dikin gelên van welatan bindest û talan dikin. Jin û mêr, pîr û kal, keç û kurên wan digirin, didarizînin û dikujin. Bi navê demokrasiyê li ser keda mirovan rûdinên û di mal û milkê wan de diçêrin. Bi navê demokrasiyê mafê jin û zarokan binpê dikin û bindest û bintûte dihêlin.

Ji takekes û civakê bigir heta gel, nîjad û neteweyê; ji sazî û dezgehên sivîl bigir heta malbat û mezrîngeyên komelî… hemû demokrasiyê wekî spartek û asêgeheke negihêj dibînin. Ligel ku di warê karvaniyê de tu kes zêde li demokrasiyê xwedî dernakeve jî, dîsa wê wekî kilîda deriyê hemû pirsgirêkên hundirîn û derveyî qebûl dikin û diceribînin.

Gellek caran demokrasî jî wekî hemû têgihên civakî, bi çend awayan tê ravekirin û navandin. Û li gorî vê yekê jî tê sefandin û kategorîzekirin. Bo nimûne; demokrasiya burjuwazî, demokrasiya proleteryayê, demokrasiya gel, demokrasiya dewletê, demokrasiya sosyalîzmê, demokrasiya liberlaîzmê û hwd. Heçku ji bilî demokrasiyê tu demokrasiyên din tune ne û ew gellekî dûrî demokrasiyê ne. Demokrasî tê wateya azadî, wekhevî, aramî û ahengdariya civakê. Heke ku di civakekê de du çînên dijber û lêkneker hebin, ne pêkan e ku di wê civakê de demokrasî pêk were. Heta ku çînên serdest û bindest di heman qadê de pevre bijîn, tu kes nikare behsa demokrasiyê bike. Heta ku dewlet û hêzên dewletê hebin ne pêkan e ku demokrasî pêk were. Lewre dewlet serdestî û otokrasiyê diparêze û xwe dispêre hêz û zordariyê. Belê gel hewceyî demokrasiyê ye. Ji bo wê, çawa ku gel û dûgel nabin yek, demokrasî û otakrasî jî nabin yek û li hevdu nakin. Demokratîkbûna gel û civakê mimkun e; belê demokratîkbûna dewletekê ne mimkun e. Dewlet û demokrasî dûrî hevdû ne. Belê gel û demokrasî pir nêzîkî hevdû ne û qet ji hevdû naqetin.

Îro li ser rûyê dinê du çînên(hêzên) bibgehîn ên dijber û lêkneker hene. Yek jê çîna serdest û ya din jî çîna bindest e. Çîna serdest dewlet û otokrasiyê diparêze. Çîna

## Kaniya Helbestan

# Tenêbûn Betilî



**Bêrî BIHAR**

Roj, betlandina îro jî,
Da ser milên xwe û çû ava.
Weke assolîsta di dawiya jiyana xwe ya hunerê de
Hêdî hêdî, bi nazikî derencên dikê dadikeve.
Ji me re taveheyva vala û biyanî ma.
Û li dû wê tenê çend stêr û heyveke zirav.
Na na wê tenê bûna janazirav nahesibînim,
Ewa ku di hemêza me de weke dara biyê
herdem şîn dimîne.
Ew tim heye û bi me re ye.
Ew tim heye û ne di wê hizrî de ye,
Ku di nîvê Pasîfîkê de
Bi dûrbînê li dûriyan dinihêre,
Lê nizane devikê dûrbînê hildaye an na.
Tenê dengê bayê û pêlên behrê tê,
Û dengê çireçira pûsûlayê,
Û radarek heye,
Di tarîtiyê de li rêya xwe diger e…
Û tenêtî hêdî hêdî di xew re diçe.

# Ez Depresîf İm, Tu Depresîf Î, Herkes Hebekî Depresîf E...

**Îbrahîm Seydo Aydogan**

Kesên ku di vê rewşê de ne, an jî demekê ketibin vê rewşê (ma gelo mirov dikare ji bo demekê têkeve depresyonê?), dê baş fahm bikin bê ez yekî çawa me. Ji xwe ez ê ji bo kesên weha behsa vê bûyerê bikim.

Weke her depresîfî (belkî jî divê mirov bibêje şîzofren), di serî de min jî ji ber vê rewşa xwe pir êş kişand. Weke herkesî min jî di serî de nizanîbû ku ev rewş bi xwe weke nexweşiyekê dihat qebûlkirin.

Wê gavê yekî rabûya û rêyek bi ber min bixistaya, min ê xwe bikiraya qurbana wî. Lê him min nedihişt ku kesek bi sî û sitarê min ve biketaya û him jî ji xwe ez bawer nakim ku kesek di demeke weha de dikare ji mirov re bibe alîkar.

Rojekê, ez ji xwe re fikirîm. Min got, hey kes ji min fahm nake, hema ez ê jî herim xwe rê psîkiyatrîstekî bidim. Her gava ku min li kolanan tabelayên psîkiyatrîstan didîtin, bi tenê ew dihat bîra min.

Ne ku ez neçûm, ha! Ez carekê çûm jî.

Psîkiyatrîst, jineke xweşik bû. Bejina wê dirêj, milên wê yên li derve fireh, mîna kihêlekê rewnaq, porê wê zer, rûyê wê şêrîn û çavên wê şîn bûn.

(Gava ku ez çav li wê bedewiyê û wan pêsîrên ku zor dida qutikê wê ketim, çendakî zimanê min baş negeriya. Hingî xweşik bû, çer ku mirov lê biniheriyaya, agir bi dilê wî diket û xwe bera nava lingên wî dida. Hişê min ji serê min çûbû, ez gêj bûbûm. Gava min ew dît, bi tenê tiştek hat bîra min. Min ji xwe re got, hema bila vêya tiştekî ji min re nebêje û tu derman mermanan jî nede min; bila şevekê di himbêza min de bimîne, ez xwe di himbêza wê de berdim û mest bibim, besî min e.)

Ji min pirsî, bê ez ji bo çi hatime û derdê min çi ye.

Ez dipeyivîm, wê jî hey dinivîsand.

Piştî ku min derdê xwe ji wê re got, jinikê serê xwe ji ser kaxeza ku hey dinivîsî rakir û li min niherî. Got, hela bê ez derewan dikim, an na. Xwast ku fahm bikiraya. Helbet, hayê min jê hebû bê bi çi mebestê li min diniherî û çi difikirî.

Yê min, ez ji xwe re li tiştekî din difikirîm.

(Wê gavê, min ew tazî anî ber çavên xwe. Bedena wê gewr û xweşik, nava wê zirav bû. Sînga wê nerm, pêsîrên wê yên ku min dixwast hema destê xwe hêdîka bidim dora wan, xweşik, gurover û belbûyî ku avê bi ser devê mirov bixîne. Her derê canê wê sincirîbû û li benda min bû.

Hema mirov dixwast ew li ser piştê vexistaya û derketaya ser.

Ji bo ku ez xwe neavêjim ser wê, min xwe bi zorê digirt. Min dît ku tiştek di nav lingên min de bel dibû, min hema lingên xwe avêtin ser hevdu û ez sekinîm. Rûyê min sorbû. Ez ji fediyan bişirîm. Ji nişka ve li min germ bû.)

Demeke dirêj di navê re bihurî. Carê wê dipirsî, min jî digot. Carinan, di nav re tiştin ji min re digot ku dixwast ji min re bigotaya, "Tu belasebeb ji xwe re dikî xem, ev ne nexweşiyeke giran e." Qey dixwest ez ji psîkolojiya nexweşiyê bi dûr bixistama. Ez nizanim. Ew karê wê ye.

Min rişma hespê xwe dabû destê wê û min ji xwe re gotibû, hema çi ji min bipirse ez ê bersivên rast û samimî bidimê. Ji ber ku min dixwast rehet bibûma.

Tiştin din pirsî. Pirsên wê her ku diçû, kûrtir û pirtir dibûn. Carê dîsa weke bîstika din disekinî, enîşka xwe dida ser maseyê, destê xwe ji çenga xwe re dikir destek û li min temaşe dikir. Guloka pirsan û galegalan di mejiyê wê de digeriya û mezin dibû. Min didît. Vê rewşê jî mahneyeke din, mahneyeke kûrtir û nermtir dida niherînên wê.



(Xwedêyo, bi wî awayî çi xweşik dibû!)

Piştî ku min jê re behsa xwe û dinyaya xwe kir, jinikê dîsa bala xwe da kaxezê û nivîsand. Di ber re jî ji min pirsî. Lê mîna ku bi yekî din re dipeyivî, wek ku ji yekî din dipirsî...

"Te qet ji xwe re gotiye, hema ez bimirama û xelas bibûma?"

Min got: "Belkî hezar carî."

Dîsa serê xwe rakir û li min niherî. Ez dibêjim qey ji min bawer nekiribû.

(Ji xwe, ez dibêjim qey ev jinik bi psîkiyatriyê jî baş nizane. Ji ber ku ne li binhişê min geriya û ne jî tiştekî bi wî rengî pirsî. Qey me jî çend pirtûk li ser psîkiyatriyê xwendibûn!)

Pirsên wê her pirsên rojane...

"Tu çi karî dikî? Çend hezkiriyên te çêbûne? Niha tu hezkiriyeke te heye? Karê ku tu dikî, bi dilê te ye, an na? Hûn çend bira ne? Tu tevî malbata xwe dijî, an na? Têkîliyên te û malbatê çawa ne? Tu hevalên te hene? Tu kesekî din ku ew jî di vê rewşê de ye, nas dikî? Te heta niha, çend qedeh araq vexwarine? Çend qedeh votka? Çend şerab? Çend wîskî? Çend quzilqurt? Tu çend caran vereşiyayî? Te çend caran bi topê lîstiye? Te çend gol avêtine? Tu ji kincên bi çi awayî hez dikî? Spor? Klasîk? Fermî? Serbest? Li gora kêfa xwe? Tu çend caran beyî hişê xwe, li sûkan geriyayî? Çend caran li qiraxa çemekî, te nizanîbûye, bê çawa li te bûye şev û bi dû re çawa bûye sibeh? Lingên te çend caran li kevir meviran aliqîne? Te çend caran li sûkê tû erdê kiriye? Çend caran fiş kiriye? Çend caran bi daran de mîztiye? Çend caran qûna xwe bi keviran paqij kiriye? Te nîhaye çend keran? Keçikan çend caran ji te re gotiye, "na!"? Tu çend caran giriyayî? Te serê xwe daniye ser sînga çend pîrekan? Tu bi çend heban re raketiyî? Çend caran çûyî û hatiyî? Tu qet diçî kerxaneyê? Tu li ser Muslum Gurses û Orhan Gencebay çi difikirî? Bi te, dengên Mûslûm Gurses û Mihemed Şêxo bi rastî jî dişibin hevdu? Le Ciwan Haco û Orhan Gencebay? Tu ji filîmên Turkan Şoray hez dikî? Le yên Yilmaz Guney? Tu ji pisîkan hez dikî? Ji kulîlkan? Ji çivîkan? Ji mirîşkan? Ji maran? Ji kêzikan? Ji mêşên keran?"

Wê rojê qey hilma min bi qasî ya Xwedê fireh bû. Şensa wê hebû.

Min bersiva pirsên wê yek bi yek da.

"Ez xeyal û fantaziyên xwe difiroşim kesên bêaqil ku nizanin ji xwe re xeyal û fantaziyan çêbikin. Hejmara hezkiriyên xwe nizanim. Niha, hezkiriyeke min tune ye, lê her pîreka li ser rûyê vê dinyayê, ji bo min berendamek e, rojekê dikare re bibe hezkirî. Karê min ne bi dilê min e. Em sêzdeh xuşk û bira ne. Heft jê keç in. Şeş law. Ez tevî malbata xwe dijîm. Têkîliyên me baş in. Ji min hez dikin. (Belkî jî ditirsin.) Tu hevalên min nîn in. Yek dudo hebûn, ew jî ji min xerabtir bûn. Min heta niha, 37 şûşe araq, 52 şûşe votka, 147 şûşe şerab, 9 şûşe wîskî vexwarine. (ji ber ku wîskî biha ye!) (şûşe giş li mala min in. Ez jî nizanim bê çima.) Ez herroj quzilqurtê vedixwim. Bîst û du caran vereşiyame. (Ew jî giş ji ber araqê bûn.) Min 1358 caran bi topê lîstiye. Lingê min 154569 caran bi topê bûye. Min heta niha, carekê bi tenê gol avêtiye. (Ji xwe, ji bo wê ji kêfan, wê şevê xew neketibû çavên min.) Ez ji kincan hez nakim. (Herkesî wek min bikiraya, yan jî kesî tu bela neaniyaya serê min, ez ê tazî bigeriyama.) Ez li sûkan nagerim. Heta ku rêya min di ber wan re derbas nebe, ez nahêlim çavên min jî li wan bikevin. 23 caran li qiraxa çemekî li min bûye şev û bi dû re jî bûye sibeh, hayê min jê çênebûye. Lingên min 224 caran li kevir meviran aliqîne. Min 762 caran li sûkê tû erdê kiriye. Min 15 caran fiş kiriye. (Ji ber ku însan giş li mirov dinihere, mirov êdî fedî dike fiş jî bike.) Min 283 caran bi daran de mîztiye. Min 36 caran qûna xwe bi keviran paqij kiriye. Min heta niha nenîhaye keran. Heta niha, tu keçikan ji min re negotiye, na. (Ji xwe, vêya hebekî dilê min xweş dikir. Qey ji ber wê ye ku min hê dil nedaye keran.) Ez her ku vedixwim, digirîm. (Nizanim, bê çima). Min serê xwe daniye ser sînga 7 pîrekan. (Yek ji yekê qahpiktir bû.) Bi gişan re raketime. Ez nizanim, bê ez çend caran çûme û hatime. Di xortaniya xwe de, ez sê caran çûbûm kerxaneyê. Bi min, herdu jî hêja ne ku mirov di oxira wan de, di oxira Muslum Baba û Orhan Baba de, xwe bikuje. Muslum Gurses ji Mihemed Şêxo qeşengtir e. Ciwan Haco pir araqê vedixwe û dibêjin ku esrarê jî dikişîne. Tiştên weha li cem Orhan Baba tune ne. (çima ew jî nakişîne, ez fahm nakim.) Ez ji filîmên Turkan Şoray hez dikim. (Di xeyalên min de jî tim û daîm jineke weha esîl û bedew heye.) Ji yên Yilmaz Guney jî hez dikim... Lê ji pisîkan jî, ji kulîlkan jî, ji çivîkan jî, ji maran jî, ji kêzikan jî, ji mêşên keran jî, qet hez nakim. İmana min ji wan dihere. (Ez bi ser gişan de birrîm!)"

Piştî ku xelas bû, min bala xwe da wê û pirsên wê.

(Min di ber xwe de got, bi Qûr'an, ev ji nav livînan pê ve, ji tiştekî din re nabe.)

Rabû dermanek nivîsand û reçete da min.

"Min dermanek nivîsand. Piştî ku te dermanê xwe xelas kir, dîsa were cem min."

Ji berê de, îmana min ji dermanan diçû. Tew gava dermanên psîkiyatrîk bin, ez destê xwe jî nadim wan. Ez bi xwe dizanim. Ez rabûm û çûm li ber wê sekinîm. (Çavên min li sînga wê bûn, lê min nedihişt ku ew bi min bihise. Her gava ku bêhna xwe distend, pêsîrên wê kil dibûn û ez diricifîm.)

"Ma qey bê derman nabe?"

Jinikê dîsa li hundirê çavên min niherî.

(Xwedêyo! Hema carekê bi tenê, carekê bi tenê canê min li canê wê biketaya, bes bû. Min digot qey ez ê aniha ji ser hişê xwe herim û xwe biavêjim ser wê. Heke min destên xwe li paş xwe negirtana, destê min dê jixweber biçûna pêsîrên wê. Ma her tişt li gora dilê mirov bimeşiyaya, dê dinya xera bibûya qey?!)

"Tu hebekî dereng mayî."

a

"Ne ku tu dermanan bi kar neynî, ha!"

Min tavilê pirsî. (Ez jî nizanim bê min ji bo çi pirsî.)

"Ma ev ne ji wan dermanan in ku mirov fêrî wan dibe, ne weha?"

Çavên xwe qels kirin û mîna ku li tiştekî ecêb biniheriyaya, li min niherî. (Ji xwe ez ji berê de dizanim ku ez ecêb im. Pîrek giş weha li min diniherin. Belkî jî tiştekî weha tune ye lê ez bi xwe dibêjim qey weha ye.)

"Na, na. Tiştekî weha di vana de nîn e. Ev antîdepresan e. Tu ê şevê, yekê bixwî û rakevî. Esabên te dê bi vana sist bibin."

Min got; "Baş e." Min rahişt reçeteya xwe û ez derketim. Min li derve dîsa kaxeza wê vekir û lê niherî. Dû re min ew reçete çirand û avêt.

Ji bilî xweşikbûna wê psîkiyatrîstê û kilbûna pêsîrên wê yên xweşik û nerm, tiştek ji wê rojê di bîra min de nema.

# Pirtûka "Mîkonos Bikujên Şerefkendî Riswa Dike" Derket

Pirtûka "Mîkonos Bikujanî Şerefkendî Rîswa Deka"(**Mîkonos, bikujên Şerefkendî riswa dike**), ji nivîsandina **Luqman Mêhfer**, endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê di 166




rûpelan de kete pêşberî xwendevanên xwe.

Ev pirtûke lêkolîneke qanûnî ye ku li ser terorê û dosya terora siyasî a Dr. Şerefkendî(Sekreterê Giştî yê PDK Îranê) û hevalên wî vedikole û qala wê çendê dike ku Dadgeha Mîkonosê, piştî lêkolîna li ser dosya terora siyasî a Dr. Şerefkendî û hevalên wî, bo heyamê zêdetirî 3 salan bala beşeke berbiçav ji raya giştî a cîhanê ji bo aliyê xwe rakişandibû.

Di pirtûkê de bas tê ser Komara Îslamî a Îranê û wiha tê gotin: "Komara Îslamî ya Îranê di heyamê desthilatdariya xwe de heta terora 17.09.1992'an ya Berlînê, ji bilî hundirê Îranê, tenê li derveyî Îranê 150 kiryarên terorîstî li dijî neyarên xwe encam daye ku di wan kiryaran de 80 kes hatine kuştin, lê ew cara yekemîn bû ku dadgeheke nîştimanî a xwedî hitbar rejîma Komara Îslamî dikeve pêşberî dadê û tawan û sûçên wê riwsa û mehkûm kirin. Lewra bi heq ji aliyê hemû sazî, organ û alîgirên dadperwerî û mafê mirovan girîngî û pûteyeke zaf bi wê dadgehê hatiye dayîn û tev aliyek bi hêviyek mezin çavnihêrî pêvajoya pêşdeçûn û encamên qanûnî ên wê bûn".

Dadgeha Mîkonosê ku li bajarê Berlîna Almaniyayê hate lidarxistin, zêdetirî sê sal û nîv dem bir û di wî heyamî de 246 heta 247 car civîn jê re pêk hatiye. 166 heta 170 kes ji bo şahîdîdanê hatine vexwendin.

Li gorî çavkaniyan ji bo lidarxistina wê dadgehê derdora 9 milyon Mark pere hate xerckirin.

Ewa ku hevdem di bîra me de zindî ye, tenê ev e ku Dadgeha Mîkonosê di civîna roja 10'ê Nîsana 1997'an ya xwe de, bi dayîna biryareke biwêr û dadperwerane, rêberên Komara Îslamî a Îranê di pileyên herî bilind ên desthilatê de weke sebebkarên derkirina fermana terorkirina Dr. Şerefkendî, rêberê PDK Îranê ji dinyayê re nasand û birayar cezayê girtîgehê jî ji bo wan çend kesên ku di birêvebirina fermana terorê de dest hebûne, der kir.

Nivîskarê pirtûkê Luqman Mêhfer, pirtûk bi ser 7 beşan parve kiriye:

Beşa yekem û duyem a pirtûkê bi awayekî berfireh balê dikişîne ser dîroka serhildana terorê, pênaseya terorê û fakterên terorîzma navneteweyî, awa û şeklên terorîzma navneteweyî û her wiha terorîzma navdewletî.

Di beşa sêyem de **terorîzm wekî berçaviyek(diyarde) navneteweyî** hatiye berbas û nivîskarê pirtûkê qala hewl û bizavên ji bo ji holê rakirina terorîzma navneteweyî ji aliyê rêxistinên navneteweyî û helwest û bîr û raya navneteweyî derheq terorîzma navneteweyî dike.

**Tawan û lêkolîn** mijara beşa çarem ya pirtûkê ye. Di vê beşê de birêz Mêhfer basa vê yekê dike ku du rêberên Kurd di kongireya Enternasyonala Sosyalîst de ji bo baskirin li ser çareseriy pirsgirêka Kurd beşdariyê dikin, lê piştî bidawîhatina kongireyê, her du rêber ji aliyê terorîstên Komara Îslamî ya Îranê ve tên terorkirin.

Di beşa pêncem a pirtûkê de **helwesta dewleta Almaniyayê** hatiye û aliyên cur bi cur ên vê mijarê ji hêla hiqûqî ve hatine nirxandin.

Beşa şeşem a pirtûka han, **liv û tevgeriyana dewletan li hember dozê** dixe ber bas û nivîskar bas li dijkiryarên Îranê derheq pirsê dike û raya giştî li ser vê baweriyê ye ku divêt diyaloga rexnegirane tevî Îranê bi dawî bihê, di demekê de ku Amerîkayê birayara Dadgeha Mîkonosê erê dike. Di vê beşa pirtûkê de, nivîskar tê ser basa helwesta opozîsyona Îranê û kesayetiyan li dor doza terora Mîkonosê û çend peyamên rêxistinên siyasî di vê beşê de cih kiriye.

Di beşa dawî a pirtûkê de, **helwesta qanûna giştî a navneteweyî** derbarê derbarê terora siyasî, wekî mijara dawiyê hatiye berbas. Di vê beşê de nivîskar qala dîtin û nêrînên çend kesayetiyên pispor û şareza di vê derbarê de, pirensîpên yasaya giştî a navneteweyî û balkişandin bi xaleke qanûna giştî a navneteweyî û bandorên dadgeha Mîkonosê hiqûqa dadê a navneteweyî dike.

Nivîskarê pirtûkê, Luqman Mêhfer encamên lêkolînê jî bi çend xalên girîng dixe berçav ku yên girîng ev in:

- Ew dadgehe di rastî de bi wateya bidawîhatina doza mehkemekirina wan bikujan nebû ku di dagehê de bûn, belkî ew dadgehe di rastî de mehkemekirina Komara Îslamî a Îranê di asta cîhanê de bû.
- Birayara wê dadgehê yê bûye bingeheke xurt û qahîm ji bo ku di pêşerojê de serokên Îranê di dadgeheke navneteweyî de werin mehkemekirin û bibe dozeke cîhanî.
- Dadgeha Mîkonosê têkiliyeke rasterast tevî hinek kesayetiyên opozîsyona Îranê heye ku li Almaniya û Ewropayê hatine terorkirin. Bo mînak terorkirina Dr. Ebdulrehman Qasimlo di 13'ê Tîrmeha 1989'an li Viyenê û gellek nimûneyên din.
- Hebûna komîteyeke opozîsyona taybet ku tevî yasaya bingehîn a Îranê dijberî heye û vê rastiyê diselimîne ku rayedarên Komara Îslamî ya Îranê nikarin bi qanûnê re serederiyê bikin.
- Divêt mirov ji dosya Mîkonosê re ji du nêrînan ve binêre. Ji aliyekê tevgera rizgarîxwaziya gelek bindest û xwedî derbasbûyiyeke bixwîn ku çend kes ji rêberên wî gelî bûne goriyên destê xedr û tawanê. Ji alliyê din ve jî hikûmeteke zordar û fêlbaz weke Komara Îslamî a Îranê ye ku hemû îmkanata Îranê ji bo parastin û mana xwe û ji navbirina azadîxwazan bikar aniye.

Xwezayî ye ku di navbera van du hêzane de tu wekheviyek nîn e. Lê edalet, qanûn, demokrasî, parastina mafê mirovan û heqaniyet li pişta vê aliyê zulmjêkirî tê dîtin û bûne sedema vê çendê ku di Dadgeha Mîkonosê de, yasa, maf û edalet bi ser zordariyê de serkevin.

**Deseya Weşana Agirî**, bona derkirina vê pirtûka bihagiran, sipas, destxweşî û mandînebûnê ji parêzer û nivîskarê pirtûkê, Luqman Mêhfer dike û hêviya serkevtinê ji wî re dixwaze.

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Di 8 Mehan De Zêdeyî 200 Kes Hatine Îdamkirin



Ajansa Nûçeyan a Fransayê (AFP) da zanînî di 12.09.2007'an de, du kes li bajarên Qum û Meşedê de hatin îdamkirin. Rapora Nûçegihaniya Fransayê eşkere kir, bi daliqandina van du kesan, hejmara kesên ku di sala 2007'an de li Îranê hatine îdamkirin, gihîşt 193 kesan. Herweha dîsan 2 rojan berî niha li bajarê Mahan ser bi Parêzgeha Kirmanê, 7 kes hatine îdamkirin.

Hejmara ragihandî tenê wan îdaman digire ku di medya û rojnameyên navxwe yên Îranê de têne belavkirin, lê di rastî de hejmara kesên îdambûyî gellek bêtirî vê serhejmariyê ye. Herwiha 3 kes jî roja 13.09.2007'an de, li bajarê Ehwazê hatin lidarvekirin.

# Xwarina Zeytûnê Mirov Ji Nesaxiyan Dûr Digre



Li ser xwarin û mifaha zeytûnê, lêkolînvan gihîştin vê encamê ku xwarina wê bo mirov gellek bisûd e.

Zeytûn xwarinek nerimker e anku bo rûviyên mirov, herweha kevirên nav laşê mirov de jinav dibe û pêşiya bendbûna mirov digre.

Herweha ji bo nesaxiya şekirê jî baş e, ew jî bi vexwarina keçikek ji zeytûnê wê li sibêdeyan û şevan jî li pêş nivistinê de.

Xêncî wê ku Zeytûn ji bo kêmxwînî, pêşgîrî ji hişikbûna çermê dest û çav li sirr û seqemê de û verîna tûkê ser de bi mifah e, dikare ji bo xweşikkirina çermê sûmet û ser û çavan jî bihê bikaranîn, herweha ji bo çareserkirina zirpik û xalên reş jî bikar tê.

Ger selikek Sîrik di nava 20 gram Zeytûnê de bihê hûrkirin û 2-3 rojan bimîne, piştre ew cihê ku êş û azar heye pê bihê perixandin, wê demê sûd û mifah bo Romatîzmê û pêşgîrî ji verîna pirçê heye.

*Jêder: Malpera "KurdistanTv "*

# Amerîka Nêzîk Hidûdê Îranê Bingehekî Eskerî Datîne



Li gorî ajansên nûçeyan, qirar e Amerîka li Îraqê de sê çar mîl nêzî hidûdê Îranê bingehekî eskerî datîne, ku ev bingeh bi kêmasî du salan li ser kar be.

Fermandeyê tumena sê ya piyade, general **Rick Lynch** ragihandî ye ku Amerîka her wiha dê li hidûdê Îraqê heta Bexdayê û li ser riya esasî niqtên kontrolê jî ava bike. Armancên vê binkeyê û noxteyên kontrolê jî ew in ku rê li ber alîkariyên Îranê yên eskerî ji bo şîiyan bê girtin.

# Ehmedînejad Îtiraf Bi Piştevaniya Rejîmê Ji Terorîstan Di Îraqê De Kir



Serok Komarê rejîma Îranê di gotûbêj bi kanal 4 a Îngilîstanê de bi awayekî nerasterast îtirafê dike û wiha dibêje: "Ger Amerîka û Îngilîs xwe neguherin û dev ji dujminatiya bi me re berdin, em dikarin di Îraqê de alîkariya wan bikin û pareke zaf ji pirsgirêkên wî welatî çareser bikin".

Wî herweha zêde kiribû ku:"Em dikarin hevkariya tenahiya Îraqê bikin. Ger ew xwe biguherînin, em dikarin çekdar û şoreşiyên tundrew ji Îraqê derxînin".

Herweha Ehmedînejad li ser Îsraîlê jî got: "Em Îsraîlê bi fermî nas nakin, ew dagirker û neyasayî ye, lê metoda me însanî ye".

# Davîdê Tolhîldan" Diçe Festîvala Splîtê



Fîlmê derhênerê kurd, Mano Xelîl a bi navê **Davidê Tolhildan** ku di gelek festîvalan de hatiye nîşandayîn, niha beşdarî festîvalên din dibe. Fîlm niha dê beşdarî Festîvala Split a Kroatia dibe.

Heta niha "Davidê Tolhildan" li gellek festîvalên wekî li Aljazeera, Krakow a Poloniya, London û Berlîn, niha jî beşdarî Festîvala Fîlman a Split a Kroati a (li Hirvatistanê) dibe. Festîvala Fîlman a Splît di navbera 15-22'yê vê mehê de li dar dikeve.

Fîlmê "Davîdê Tolhildan" çîroka xortê Swîsrî Davîd Rouiller, kurê serokê dadgeha Federal a Swîsra a berê ye. Davîd dev ji jiyana xwe a komfort li Swîsre ber daye û ev bûye dor şeş salan, cihê xwe di nav refê gerîlayên kurd de dîtiye. Fîlm li ser jiyana vî xortê swîsrî disekine.

Di Festîvala Fîlman A Splîtê de, dora sed fîlmî têne nîşandayîn. Xelata mezin a festîvala par fîlmê "Babil" yê derhêner Alejandro Gonzalez Inarritu girtibû.

# Pêşbaziya Îsal Ya Zebeşan Li Amedê



Îsal jî pêşbaziya Zebeşên herî mezin li Amedê hate li darxistin û ji gundê Erîmlî, gundiyê bi navê **Mehmet Salih Yaşa** bi zebeşa xwe ya 46 kîlo û 660 gram bû yekemîn. **Yusuf Meşe** bi zebeşa 46 kîlo 320 gramî duyemîn, **Mehmet Aktaş** jî bi zebeşa xwe ya 44 kîlo û 640 gramî bû sêyemîn.

Yên ku ketin dereceyê tevî belgenameyekê ew xelat standin:

Yê yekemîn 3 hezar û 500 YTL û du tam, du nîv û çarîk zêr girt. Yê duyemîn 2 hezar û 500 YTL, tam zêrek, nîvî zêrek û du çarîk girt. Yê sêyemîn jî hezar û 500 YTL nîvzêrek, sê çarîk zêr girt.